Bidestveanîna Mafên Netewî
Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya
Îranek Demokratîk û Federal De

Hejmar: 196
20'ê Çileya Pêşîn a 2012'an
Buha: 150 Tûmen

# Agirî

Peyama Rêzdar Mistefa Hicrî bo Mekteba siyasî ya YNK'ê
Rêzdar Mekteba Siyasî a YNK
Silavên dostane
Bi navê rêberiya PDKÎ ve, em tevî nîgeranbûna ji rewşa tendurustiya rêzdar Mam Celal Talebanî serkomarê Îraqê û sekreterê PUK, hêvîdarin rewşa wî bilez ber bi baştirbûnê ve here bona xizmeta zêdetir bi gel û niştiman.
Mistefa Hicrî , sekreterê giştî
PDKÎ, 29'ê Sermaweza 1391
19'ê Çileya Pêşîn a 2012

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û giştî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Iranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî

Birêz Rostem Cehangîrî:

## Şoreşa Kurd û pêşmerge li hemû qadên xebata siyasî û medenî, zêdetir ji her demekê geş e




**Rê û resma roja 26'ê Sermawez roja Pêşmergê Kurdistanê li binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ de birêve çû.**

Ew rê û resm destpê bi xwendina sirûda Ey Reqîb û ragirtina deqeyekê bêdengî bona rêzgirtina ji şehîdên hizb û gel dest pêkir. Piştre peyama Deftera Siyasî a PDKÎ ji aliyê rêzdar Rostem Cehangîrî endamê Defterea Siyasî a PDKÎ ve hate xwandin.

Naweroka vê rê û resmê jî pêk hatibû ji xwendina helbest û sirûdên niştimanî, û herweha xwendina peyamên Yekîtiyên jinan, lawan û xwendekaran, û herweha dana xelata rêzgirtinê, ji aliyê rêzdar Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ ve, bi wan pêşmergeyên ku 20 sal e di nav refên PDKÎ de ne. Ew rê û resm bi coşek bê mînak a beşdaran û bi şahî û govenda bi xeml û rewş a Kurdî bidawî bû.

Hêjayî basê ye ku bi boneya vê roja pîroz li rojhilatê Kurdistanê de jî endam û alîgirên PDKÎ û xelkê dilsoze Kurdistanê bi her awayî ku ji destê wan hat, heya serbarê rewşa tund ya ewlehiyê ew roja pîroz kirin.

Doma peyama Deftera Siyasî a PDKÎ di Rûpela 3'ê de bixwînin.

## PDKÎ peymannama parastina mafê jin û zarokan di dema şer de, wajo kir

**Şandekî Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, bi serperestî a Dr. Mîro Eliyar, endamê deftera siyasî û çend partên din yê Kurdistana Îranê, peymannama parastina mafê jin û zarokan li dema şer de, li parlemana komara Kanton a Jinêvê de wajo kirin.**

li gorî nûçeyan di destpêka rê û resmê de xanima "Aniya Wîden Gwêlpa" berpirsa komara Kanton a Jinêvê, got: Îmzakirina peymannama parastina mafê jinan û zarokan li dema şer de ji aliyên PDKÎ, pingewekî dirokî ye û cihê gotinê ye ew peymanname li cihekî dirokî weke "Odeya Alabamay" a Parlemana komara Kantona Jinêvê, wate cihek ku


Konvansiyona Jinêv ya Yasaya Navneteweî a şer li sala 1864'an de pesend kir, bê îmzakirin.

Dom R:6

## Obama ji bo zarokên welatê xwe giriya

Piştî bûyera teqekirin di xwendegeha despêkî ya Niyotan a Amerîkayê, êvariya roja Înî, Barak Obama Serkomarê Amarîkayê bi çavên pir ji rondik derket ser şaşeya televizyonê û soz da ku hewlên bingehîn bide bo bidawî anîna tirajidyayên weha kûjer di



Amerîkayê de.

Navbirî di doma gotinên xwe de ragehand ku; dilê min şikest, gelek bûyerên weha di çend salên derbasbûyî de ducarî bûne, û ez ji ducarî bûna berdewam ya bûyerên weha dilgiranim.

Teqeya kujer a sibezûya roja Înê, di xwendegeha bajarê Niyotavn a ser bi herêma Kanêktîktê de, 27 kesan canê xwe ji dest da ku 18 kes ji wan zarok in.

Birêz Mele Qasim Keleşî:

## Ew 59 lawên netirs ên Mehabadê ku rejîmê îdam kirin, li cem me bûn



**Xebat û tekoşîn, û êş û elemên xebata serfirazane**

Hevpeyvîn: R:9

R:4

**Du bûyerên hevşêwe, li du cihên...**



R:6

**Rojavayê kurdistanê! derfetek ...**



R:7

**Deshilatxwaziya Morsî ...**



R:8

**Rewşa jinê di civaka kevneşop...**



R:11

**Zarokên Şînawê...**



# Heyetek payebilind a PDKÎ bi hevalên pêşîn re civiya

**Li gorî rapora Kurdistanmedia, roja Çarşemiyê 22'ê Sermawez (12'ê Çileya Pêşîn), heyeteke payebilind a PDKÎ bi serperestiya rêzdar Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ û himarek ji endamên rêberî serdana hevalên pêşîn kirin, û ji aliyê heyetekê bi serperestiya Xalid Ezîzî ve pêşwazî ji wan hate kirin.**

Di vê civînê de rêzdar Mistefa Hicrî sipasiya vê pêşwaziya germ kir û armanc ji serdana xwe ku hewildan bo nêzîkbûn, diyalog, alîkarî, yekgirtin û yekrêziya hêzên siyasî ên Kurdistanê bû, xiste ber bîrûboçûna hevalan.

Mistefa Hicrî li beşek din ji axavtina xwe de bas ji helwesta hêzên siyasî ên Kurdistana Îranê, û hevdengiya wan li derheq opozisyona Îranî û kom û komeleyên navnetewî kir, û li ser her yek ji wan pirsên siyasî axavtin kir.

Rêzdar Hicrî li doma axavtina xwe de ew yek jî eşkere kir ku ew guhertin bandora erênî li ser tevgerên cemawerî û xebata xelkê têhniyê azadiya welatê Îranê û bi taybet xebata Kurdan li vî welatî de dadinê, û li vê haletê de yekîtî û yekrêziya hêzên siyasî ên Kurdistana Îranê hewcehiyek zêdetir ji berê bi xwe ve dibîne.

Beşek din ji vê basê hate danîn bo çawaniya hevhelwestiya li ser wan çemkên siyasî, û bas û beşdarîkirina aliyên Kurdî tevî opozisyona Îranî, û pêdagirî li ser mafên rewa ê neteweyên Îranê, demokrasî û parvekirina deshilatê li Îraneke demokratîk û federal de, ku beşdariya hêzên siyasî ên Kurdistana Îranê bi yek gotara netewî û yek helwest û îradeya bihêz dikare serkewtin û deskewtên siyasî ên mezintir bi destve bîne.

Piştre rêzdar Xalid Ezîzî sipasiya Mistefa Hicrî kir û axavtinên wî wek baseke rastbînane nav bir û li ser vê bawerê bû ku ew mijarên li vê basê de hatin gotin, li ratsî de dîtingeha wane jî, û li gelek waran de xalên wan ên hevpar hene.

Di van civînan de kombûna heyetan û destpêkirina



diyalogê wek pêngavek erênî hate wesif kirin û li ser vê bawerê bûn ku jiber ku boçûnên wan ji yektir nêzîk in, dikarin mîkanîzma bihevre karkirin û alîkariyê diyarî bikin, û li pêşerojê de astengên li ser riyan hilgirin.

Li dawiya vê civînê de birêz sekreterê giştî ê PDKÎ ragehand ku emê berdewam bin li ser diyalog û lihev nêzîkbûn û alîkariyê û herweha got ku bêguman gelê Kurd û hevalên me bi vê pêngavê kêfxweş dibin.

## Sergotar

## PDKÎ û serkevtinên wê

**Şehab Xalidî**

**Y**ek ji pîvanên demokratîk û pêşkevtîbûna her partiyeke siyasî, astê himbêzkirina vê partiyê ji aliyê sazî û nawendên xwedînifûz li astê navneteweyî de ye. Bi vî rengî hem nawendên navneteweyî bi biryarên xwe yên mentiqî dikarin erkê xwe di warê astê xizmeta bi proseyên aştiyê di cîhanê de biselmînin, û hem jî ew partiyên ku têne wergirtin, dikarin baştir neteweya xwe bi hêz û aliyên siyasî li astê welat, herêm û cîhanê de jî bi başî bidin naskirin, û rê ji bo gihîştina neteweya xwe bi armancên ku jêre xebat kiriye, xweş bike.

Yek ji wan partiyan PDKÎ ye, ku li ser bingeha wan pîvanên demokratîk û rêzgirtina ji mafê mirovan û bi bandorbûna vê partiyê, di sala 1996'an de mafê şanaziya endametiya di Înternasyonala Sosyalîst de pê hate bexşîn, ku ew yek serkevtinek pirr mezin bo PDKÎ bû. Jiber ku wergirtina PDKÎ di saziyek weha berfireh û pêkhatî ji hêz û aliyên demokrat û sosyalîst ve hem bo danenasîna neteweya Kurd û xebata wê pirr giring bû û hem jî di vî warî de ku hinek ji endamên Înternasyonala Sosyalîst di welatê xwe de berî wê demê deshilatdar bûn, yan jî her wê demê xwedî deshilat bûn, dikarî alîkariyê bi baştir bandordanîn û pêdaçûna wan partiyan bi ser siyasetên xwe derheq pêwendiyên bi Îranê re danê.

Ji aliyek din ve wergirtina PDKÎ wek endam ji aliyê UNPO'ê ve di sala 2001'an de, ew jî serkevtinek giring û gihîştina nûnerê PDKÎ bi astê Konseya serokatiya UNPO jî bo neteweya Kurd li rojhilatê Kurdistanê û bo PDKÎ wek nûnerê Kurdên rojhilatê Kurdistanê, şanaziyek mezin û serkevtinek din bû.

Herweka îmzekirina peymannameya nehêştina wan mînên ku dibne sedema kuştina mirovên medenî û bê tawan, ji aliyê PDKÎ ve, û îmzekirina peymannameya parastina mafê jin ûzarokan di dema şer de, ew jî nîşane û selmandina astê têgihîştina PDKÎ ji mafê mirovan bûn ku bê guman dê bibne sedema bidestveanîna serkevtinên zêdetir bo PDKÎ û gelê Kurd.

## Daxuyaniya hevbeş a PDKÎ û Komeleya Şoreşgêr a Zehmetkêşên Kurdistanê derheq bûyera xwendegeha Şînawê




**L**i gorî nûçeyên gihîştî ji pîranşarê sibezûya Çarşemiyê 14'ê Sermawezê xwendegehek destpêkî akiçan li gundê Şînawê a nêzî Pîranşarê agir girt û li encam de 37 keçên dersxwan li pola çarêa destpêkî tûşî şevitîn û birîndarbûnê bûn.

Hejimarek ji wan zarokên ku birînên wan giran bûye, bona çareseriyê bo bajarên derdorê hatine birê kirin, û li gorî dawî zanyariyan çend kes ji wan zarokan rewşa wan xirap e û tirsa mirina wan heye.

Sedema vê bûyera dilêş agirgirtina sobeyeke neftî bûye ku bona germkirina odeya wan ya xwandinê mifah jê dihat wergirtin. Ev yek li demekê de ye ku gundê wan lûlekêşiya gazê jêre hatiye kirin û piraniya akinciyên vir bona hewcehiyên xwe ji gazê mifahê werdigrin, lê hêşta jî bona germkirina vê xwendegehê ji sobeya neftî mifah hatiye wergirtin.

Bê guma sedema vê bûyera dilêş ku gellek caran bo dersxwanan bûyerên weha tê pêş, û beşek ji wan li ragehandinan de tên bilavkirin, vedigere bona kêmtirxemî û xemsariya berpirsyarên hikûmetî û giringînedana bi canê dersxwanan.

Li vê rewşa pirr dijwar de ku li jêr sîbera hikûmeta îslamî de xelkê Îranê bi giştî û dersxwan û ciwanên welat rojane bil êş û azarên zêdetir berbirû dibin. Rejîma Îranê li cihê çareseriya vê rewşa dijwar mijûlî destêwerdana bi hederdana serwet û saman vî xelkî birsî û lêqewimî ye di welatên din de.

Em tevî şermezarkirina vê siyaseta dijî gelî a rejîmê, daxwazê dikin ku malbatên tewaya dersxwanêngundê Şînawê û xwendegehên din ên Pîranşarê bi piştevaniya tewaya xelkê Pîranşarê bi her awayekî ku ji destê wan tê, zextê bixin ser rejîmê bona vê ku berpirsyarên vê bûyerê lêpirsîn ji wan bê kirin û bigîjin cezayê xwe, bona vê ku ji vê zêdetir zarokên me nebne qurbaniyê wan xemsariyan.

Herweha tevî eşkerekirina xem û nerehetiya xwe ji vê bûyera dilêş, em hevderdiyê li gel tewaya dersxwanên Pîranşarê û bitaybetî dersxwanên birîndar dikin û hêviya başbûna bilez ji wan re dikin.

**PDKÎ, Deftera Siyasî**

**16.09.1391**
**06.12.2012**

# Peyama rêzdar Rostem Cehangîrî endamê Deftera Siyasî a PDKÎ

## bi boneya 26'ê Sermawez roja pêşmergê Kurdistanê



**Xelkê Xebatkar ê Kurdistanê,**
**Hevalên Hêja!**
**Pêşmergên birûmet**

Evro 26'ê Sermawez roja pêşmergê Kurdistanê ye, li vê rojê de û li serdemê pêş pêkhatin û avakirina Komara Kurdistanê de, dawî binkeyên serkûtê ên rejîma pşatiyê li bajarê şoreşgêr ê Mihabadê, paytexta efsaneyî a Komara Kurdistanê têk û pêk da, û ew herêm bi tewahî li jêr, lepê dujminan de rizgar kir û otorîteya Kurd seqamgîr û cihgir bû.

Ew roj roja yekemîn a şewqdana xebatê ye û her li vê rojê de yekemîn meşxela xebat ji bo bidestveanîna azadiyê û mafê netewî hate hilkirin. Çiraya hêvî û omêda bi pêşerojê li dil û derûna xortên Kurd de geş bû, berxwedana neteweyekê ku bi sedan salî bedbextî û bindestî dîtiye, tirs û xofa ji hesta netewî a Kurd, paytextê zaliman hejand û dara bêhêvîtiyê di nav cergê dije mirovan de çeqand.

Pêşmergê Kurdistanê xortê emegdare Kurd e, û taybet bi tu texek civakê nine, û jin û mêr û law û îxtiyar û xwendewar û nexwendewar, refên pêşmergeyan bona berengariya di gel zulmê hilbijart û her yek ji wan rol û kartêkirina taybet bi xwe li pêvajoya xebata mafxwazaneya gelê xwe li çepera pêşmergetiyê de hebûye.

Em dikarin bêjin ku ew şanazî tenê bo neteweya Kurd nine, belkû pêşmerge kariye li nav refên xwe de xortên şoreşvan ên neteweyên din jî bi cih bike, û gellek ji xoertên neteweyên din ên Îranê jî li nav vê hêza azadîxwaz de xwe dîtine, û perwerdê mekteba însanî û dadperwerî û hizra pêşmergatî.

Pêşmerge ew mirovê azadîxwaz e ku sînorên destçêkirî derbaz dike, û bi pêwendîdana îro, doh û sibê, dergehên pêşveçûna bo cîhaneke avedan vedike. Ew hizr û ramana pêşmerge berbest û astengên li ser riya xebata dijî dîktatoriyê ji nav dibe û mizgîniya rizgariyê bo neslên dahatî wek diyarî tîne.

Bi wateyek din pêşmerge ew xortê emegdar e ku mergê xwe li pêşiya jiyana xwe daniye, û amadeye û bona bextewerî û azadiya gelê xwe, û rizgariya xaka nîştiman xwe fîda bike.

Pêşmerge ew çekdarê xwedî bîrûbawer e ku bona demokrasî û dabînbûna mafê mirov li welatê xwe de bo mirovan xebatê dike, û qet bêhêvîtî û neregetî û teslîmbûna li hember dujmin de, nas nake.

Herweha li qada xebatê de hertim li serxwe û hişyar e û mafê ên hemberî xwe ku dibûne dîlên şer, parastiye.

Lewra heke em çavekê li dîroka xebata çekdarane ya derdorê û heya cîhanê jî bikin, gellek caran ji aliyê dujminên xwe ve, çekdarê terorîst û mirovkuj hatine hesibandin, lê hêza pêşmergê Kurdistanê bi sedema vê baweriya ku bi azadî, demokrasî, mafê mirov û kerameta mirovî herye û xebatê jêre dike, tevî vê yekê jî gellek caran li qada xebat û şer de tûşî têkşikan û paşvekêşanê bûye û taba wan têkşikanan kiriye, qet ji riya parastina usulên mirovî ên rêbaza xwe de derneketiye. Ji kopka serkewtinê de, jixwerazî nebûye û li têkşikan û paşekêşê de bê hêvî nebûye û rojbiroj îmana wî bo azadî û serbestiya gelê wî, qahîmtir bûye.

Ew armancên ku pêşmergê Kurdistanê xwe jêre qurbanî dike, armanc û xwesteka citên xelkê Kurdistanê ye, lewra xelkê Kurdistanê pêşmergê wek xortê xwe ê herî emegdar dihesibînin, û bi can û mal parastiye û




diparêzin.

Di dema birsîtiyê de nan û pêxor digehandin û di dema tengaviyê de bi hewara wan de dihatin, û birîndarên hêza pêşmerge himbêz dikirin û piştî başbûna birînên wan bi sax û selametî, bi dûr ji çavên nehez û dujminan rê dikirne çepera xebatê. Pêşmerge ku şehîd dibûn, xelkê Kurdistanê bûn ku termê pêşmergeyan himbêz dikin û li gorî oerf û edetên civaka Kurdistanê bi axê dispartin. Bi kurtî û her wek pêşmergê rêber şehîd Dr. Qasimlo kerem kiriye, xelk û pêşmerge wek av û masî ne ku bê yektir nikarin jiyana xwe bi rehetî derbas kin.

**Her wek şehîd Dr. Qasimlo kerem kiriye, xelk û pêşmerge wek av û masiyê ne ku bê yektir nikarin jiyana xwe bi rehetî derbas bikin**

Ew taybetmendiyane remza man û hebûna pêşmerge û gelê Kurd bûn ku niha bûye remza azadî, remza mirovekî azadîxwaz, demokrat, parêzerê mal û can û kerameta însanî ya gelekê ku bi sedan sal e ketiye ber êrîşa jinavçûn û înkarê. Dema ku navê pêşmerge dikeve ser zaran. Li nav gelên din de jî pêşmerge wek xoertê fîdakar û parêzerê neteweya Kurd tê nasîn û bi çavê rêz û hurmet ve li xebata pêşmerge dinêre. Her ew însandostiya pêşmerge bûye sedema vê ku navê pêşmerge sînorên Kurdistanê derbaz bike û bi naveke nasyar û ciyê rêz û hurmetê, û wek hêzeke ciyê baweriyê hisab jêre bê kirin. Wek mirovekî xwedî helwest teslîmî îradeya dagîrkerên Kurdistanê nebe.

Her cure boxtan û nav û natoreyeke na durust ku dujminan ji wan dikirin, cih negre û dost û yarê azadîxwazan, navê xwe derxîne û bibe hezkiriyê hemû aliyekê.

Êdî evro li Kurdistan û herêma Rojhilata Navîn de, pêşmerge wek mirovekî şoreşvan û modern û azadîxwaz, xwebextker, ji bo jiyana însan û parêzerê nirxên însanî tê naskirin.

Bi vî awayî em dikarin bêjin ku tevî vê ku pêşmerge negihîtibe hêviyên xwe ên mêjîn li Kurdistanê de, lê di warê siyasî û rewanî de, ew çekdarê xwedî bawer ê Kurd li xwe nasandin û li doza xwe ya rewa de serkewtî bûye. Rikeberên xwe di gel bêhîvitiyê berbirû kiriye.

Gellek hêzên çekdarên teyarkirî bi çek û aboriyê li herêmê de hene ku piştevaniya hêzên navdewletî bi wan re ye, û bi sermayeyek yekcar zêde a madî ku li ber destê wan de ye, nekarîne ku cihê xwe li asta herêma xwe de jî bigrin, û li ber çavê xelkê xwe ketine û xelkê wan bi çavê şik û gumanê û wek kesên ser bi bîhaniyan wan dihesibînin ku her demekê ew aliyên bîhanî bixwazin dikarin wan wek morên şetrencê bi kar bînin, lewra qet di nav xelkê xwe de, tu binkeyek wan tune ye, yan gellek li astek kêm de ye.

**Piştî vê ku heyeteke PDKÎ li 11'emîn kongireya UNP'ê de beşdarî kir, birêz Ebdulla Hicab nûnerê PDKÎ li vê rêkxistinê de, wek endamê konseya serokatiya vê rêkxistinê hate hilbijartin. Li vê derheqê de gellek rojname û televîzyonan û malperan li vê derheqê de hevpeyvîn ligel navbirî encamp dan. Radyoya Dengê Kurdistana Îranê jî li vî warî de hevpeyvînek di gel birêz Ebdulla Hicab encam da, ku me hwce zanî li ber giringiya wê, deqê vê hevpeyvînê raxin ber cave xwendevanên duheftînameya Agirî.**



Hevpeyvîn: Nûredîn Sofizade

**Kekê Ebdulla Hicab tu dikarî destpêkê de hiunek zanyariyan li ser UNPO bidî me?**

Rêkxistina gel û neteweyên bê nûner wate UNPO rêkxistineke ku li sala 1991'an pêk hatiye, û destpêşxerê wê jî ew gel bûn ku li asta navnetewî de hinek pêwendiyê wan hene lê endam ninin. PDKÎ gellek hewil dabû ku bibe endam li vê rêkxistinê de, û li sala 2007'an pêde bi awayek fermî bû endamê vê rêkxistinê. Di rastî de her aliyek ku bixwaze ku bibe endam dibe bawerî bi pîwanên demokratîk hebe, bawerî bi mafê mirovan hebe, pirensîpên xwe parastina li şidetê biparêze.

**Keko bûna PDKÎ li vê saziyê de û bûna nûnerê PDKÎ li serokatiya vê sazxiyê de çi bandorek heye li ser xebata gelê Kurd?**

Rastî de dibe ezmûnek cuda, jiber ku li her parçeyek vê cîhanê neteweyên bê nûner, nûnerek heye. Di rastî de ew yek dibe sedema fêrbûna ji yektir. Bûna me li serokatiyê hem wek pirestîjekê ye û hem jî vê yekê nîşan dide ku li dema hevdîtina li astên navnetewî de, em jî dikarin me nûnerê xwe li vir de hebe, û em dikarin berjewendiya hevqederên xwe li vê astê de biparêzin.

Bandora endametiya me li vê astê de dikare ew be ku em bi başî bikarin ew rewşa ku li Rojhilata Navîn de heye, bînne rojevê û dengvedanekê jêre çû bikin, bi awayekê ku li raya giştî de bandorê li ser qedera me danê, û li ser siyasetdanîna li asta navnetewî de. Ji aliyek din ve PDKÎ wek partiyek xebatkar dikare ezmûna xwe danê xizmeta neteweyên hevçarenûsa xwe, û di hemen dem de jî dikare gellek ezmûnan ji aliyên din hîn bibe. Wate hem dibe ezmûnek bo fêrkirin û fêrbûnê, û hem jî dikare ezmûnek baş bo temrîna demokrasiyê.

**Gelo çi aliyek di vê rêkxistinê de heye ku li astek bilind ya NY de be jî, yan niha ku vê rêkxistinê hêza îcrayî tunine, gelo dikare bandorê li ser rêkxistinên îcrarî ên navnetewî bike?**

Hinek netweyên endam li UNPO de li asta dewletbûnê de ne, hinek jî bûne dewlet, bo mînak welatek wek Taywan niha wek welatek serbixwe êdî kar dike, û ji aliyê pênc welatan ve bi fermî hatiye naskirin û wek welateke serbixwe tevdigere.

Hinek aliyan jî piştgiyek bihêz li astê navnetewî de hen, bo mînak nûneratiya xebata xelkê Çînê, niha nûnerê Dalaylama bi awayek fermî li NY de tê naskirin û nûneratiya wan heye. Bi vî awayî hemû endamên UNPO dikarin bi hevre bibin xwediyê dengek bilindtir da ku bandorê li ser biryarên li astê navnetewî de bikin.

**Li mîdyayan de hate bilavkirin, ku cenabê te bas ji pêşniyarbiryarekê kiriye ku hatiye pesendkirin, kerema xwe zanyariyên zêdetir li vê derheqê de bide me?**

Asayî ye ku li civata giştî a NY de pêşniyarbiryar bêne pesendkirin, û ew pesendkirin jî li gorî pîvanên demokratîk û navcnetewî bûne. Li pêşniyarbiryarê de me rewşa siyasî ya welat anî gorê, me rewşa girtiyên siyasî xiste ber basê, ew girtiyên ku tehlûkeya îdamê li ser wan heye, me bas ji vê kir ku divêt li asta navnetewî de zextê bêxne ser wan da ku pêşiya îdama wan girtiyan bigrin, meseleya mafê gelê Kurd, Belûç, Erebên Ehwazê me xiste ber basê ku rewşa wan pirr xirap e.

**Kekê Ebdulla te di nav axavtina xwe de bas ji Belûçan û hwd.. kir, gelo ew jî endam in li vê saziyê de?**

Hem ji Belûçistanê û Erebên Xuzistanê npner hene, û nûnerên Azerbaycanê jî li wir hene. Ez dikarin mêjim ku hevkariyek baş li navbera me û wan sê aliyan de heye, bi awayekî ku em hevdeng diçne pêş. Herweha em bi hevre li sewr pêşniyarbiryaran hevkariyê dikin û em hewil didin ku pirsgirêkên pêwendîdar bi Turkemenan, asûrî û Ermenan û heta Behayî û Zerdeştiyan jî bînne ber bas. Em wek PDKÎ asayî ye ku zêdetir li ser rojhilata Kurdistanê disekinin, lê em dibêjin ku rewşa Kurdistanê çava ye, li herêmên din de jî rewş weha xirap e.

Me di gel Azeriyan vê carê du xalên hevbeş hebûn, yek li derbarê erdheja ku li Azerbaycanê û giringînedana rejîmê bi vê herêma erdhejlêdayî, ya din jî pirsa çikbûna behra Urmiyê û encamên xirape vê çikbûnê li ser jiyana xelkê me bû ku hate rojevê û hate pejirandinê. Hewce ye ku ez bêjim li desteya rêveberiya UNPO'ê de, demekê nûnerê Erebên Îranê û li qonaxekê de jî nûnerê Belûçan têde bûye û niha jî em têde ne.

# Du bûyerên hevşêwe, li du cihên cuda û bi du reftarên cuda ve



Selîm Zencîrî

Di navbera 10 rojan de du bûyerên hevşêwe, lê li du cihên cuda de qewimîn ku her yek ji wan bi têra xwe bûn rojev û wijdana mirovahiyê hejandin. Yek li vî serê dunyayê, anku Îrana kambaxbûyî li bin hakimiyeta Komara Îslamî de ku agir bi qutabxaneyek zarokan ket û li encam de zêdeyî 30 zarok weke pelpelîskan têde şevitîn û hin ji wan jiyana xwe ji dest dan û yên din jî hêj li bin kuntirola pizîşkî de ne.

Ya din jî li wî serê din ê cîhanê, anku Dewletên Yekbûyî ên Amerîkayê de, ku xortek nesax ê rewanî gule ji qutabiyên dibistanek Amerîkayê reşand û li encam de zêdeyî 20 zarok û mamostayan jiyana xwe ji dest dan. Her du bûyer jî biazar, wijdanhejîn û hovane bûn. Ji ber ku qurbanî tev de zarokên bêguneh bûn. Qutabxane ji wan re bibû jivangeh û rûgeha hez û hêviyan.

Ew têhniyên hînbûn û fîrînê bûn, lê nedizanîn ku dê bikevin boseya tarîperestan û bênkuzirîka birîn û şevata wan vê esmanê welat jî dabigre.

Ya ku li vir de girîng û armanca nivîsa me ye sedemên bûyerê, berhevdana wan û çawaniya livîn, pêregihîştin û hest bi berpirsatiya desthilatê ye li her du cihên cuda de.

Bûyera şevata qutabxaneya Şînavê a Pîranşehrê li Kurdistana Îranê, ji çend hêlan ve cihê pirsiyar û dahurandinê ye.

Sîstema ku bi ser Îranê de hakim e, sîstemek dîktator, paremayî û nesax e ku têde tenê hakimên nesaxe wê azad in. Çûnku li coxrafiya û nîzama siyasî a Îranê û birêveberî a wê de kêmasî û paremayîbûn, zatî û bingehîn in.

Bi taybetî kurdistan hertim bi çavek ewlehî û siyasî ve hatiye nihêrtin, lewma serbarê dewlemendiya xak û surûşta wê, lê li warê xizmetguzarî û nûjeniyê de gelek hatiye pare hiştin. Xelk li hejarî û belengazî û tirsê de dijîn û tirajîdiyên han berdewam in. Berê jî li Çarmehal Bextiyarî, Zahidan, Çabehar, Sîstan û Belûçistan û ...hwd bûyerên hevşêwe bo zarokan qewimîn e û kes jî neketiye ber lêpirsînan!!



Vê carê jî serbarê hişdariya xelkê deverê ji metirsiya herifîna qutabxaneyê, lê rejîm amade nabe dibistanê vala û nûjen bike. Sîstema germkirina wê jî bi awayek sunetî û bi tehlûke bûye.

Dom R:10

**Doma peyama Deftera Siyasî a PDKÎ**

Li hember de hêza pêşmergê Kurdistanê, bi 67 sal xebat û tekoşîna bê rawestan û ezmûneke tejî ji xebat û qurbandan qet neketiye nava vê bazneyê de û her tim hêza pêşmerge wek hêzek ku tenê piştevaniya gelê xwe hebûye ji bo demokrasî û azadî û bexteweriya mirovan xebatê dike, li ser hizr û bawera xwe rawestaye û qet xwe nekiriye kopalê destê bîhaniyan û bi piştevaniya madî û meinewiya xelkê xwe li ser piyan e.

Ew taybetmendî hertim bi qazancê serbixweyî û rewayiya doza wê tewaw bûye,û ewa jî remza rewayîbûna hêza pêşmerge bûye. Ew reftar ji bo neteweya Kurd bi gişî, cihê serfiraziyê ye û bo pêşmerge ciyê şanaziyeke bê mînak e.

## Pêşmerge di kopka serkevtinê de, jixwerazî nebûye, û di dema têkşikanê de jî bêhêvî nebûye

Rêberê Kurd ku bixwe pêşmerge û rênîşanderê vê hêza siyasî û nîzamî bûne, ew şanaziya li rûpelên dîrokê de bi xetên zêrîn hatine nivîsandin û serfiraz û rûgeş wek sitêrkên esmanê geş in.

Rêberên pêşmerge û pêşmergên rêber ku bona çareseriya aştiyane a doza Kurd amade ne ku xwîna xwe goriyê armancên neteweya xwe bikin, û bi xwîna bi neheq rijiyayî a xwe mirovdostî û baweriya kûr a pêşmerge bi çareseriya aştiyane ya kêşeya rewa ya kurd nîşan dide û li hemen dem de, xwînrêjiya dujminên Kurd, û neheqiya wan li her demekê zêdetir nîşan dide.

**Pêşmergên hêja!**
**Xûşk û birayên bi rûmet!**

Piştî çend dehsalan xebata gelê Kurd gellek guhertin bi ser herêmê de hatiye, û hizrên cuda ciyê xwe guhertine, ew xebat û berxwedana ku hêza Kurd bo wan armancên ku jêre tekoşîn kiriye, ew xwestek her niha jî giring û bi buha ne.

Her niha jî daxwazên xelkê ne, û eva Komara Îslamî ye ku hêşta paşve maye û li hember gelê Kurd nekariye ku xelk û pêşmerge ji hevudin veqetîne. Bi vî awayî li vî warî de rejîm bêçare ye. Şoreşa Kurd û pêşmerge li hemû qadên xebata siyasî û medenî zêdetir ji her demekê, û çalak e, û rolekî yekalîker heye.

Nifşa niha ya xortên Kurd li tewaya beşên Kurdistanê bitaybetî li rojhilatê Kurdistanê bi hizra pêşkewtiyane a pêşmerg hîn dibe û xwe bo xebatek rewa û ciyê baweriyê amade dike. Komara Îslamiya Îranê niha êdî bûye komara şer û xwînrêjiyê, têkder û tevdanîkar û di vî warî de rekorda yekemîn bi dets xistiye, lewra hemû demekê li nav gelên çewsayî ên Îran û cîhanê de îzoletir û bê dost maye, û li her warekî de û li jêr zexta bîrûraya giştî a cîhanê de ye. Ji aliyê rêkxirawên mafê mirov, sal nine ku nehê protestokirin û li refa dîktatorên cîhanê de ku zextê bi dijî gelê xwe bikar tînin, pileyek ciyê rûreşiyê heye.

Komara Îslamiya Îranê wek komareke piştevanê hêzên terorîst û dijî aştiya cîhanî, ku hewil dide bo destveanîna çekên etomî û tewaya rê û cihên navnetewî binpê dike hatiye naskirin.

Rejîmek ku tu boçûnek cuda ji xwe qebûl nake, dengê xelkê bê wate dihesibîne, girtîgeh tijî kirne



ji azadîxwazan ku tenê daxwaza dadperwerî û sîstemek demokratîk û mafên xwe li welatê xwe dixwazin û roj nine ku xelkê deste deste îdam nekin. Lê bêxeber ji vê ku gelên Îranê bi tewahî, li xebatê nasekinin û li qada xebatê de pêşmergê evro û pêşerojê ê welat in.

Rejîma Îranê niha li navxwe de jî tûşî gellek kirîzan bûye. Hebûna çend berekiya li nav baskên rejîmê de û şerê deshilatê bona dahata giştî ya welat her hemû jî bo Komara Îslamiya Îranê wek kirîzek mezin lê hatiye ku li medyayên wan de reng vedide. Bê guman heke li salên borî de Xamineyî bi awayekê hewla çareseriya kêşên navxweyî dida, lê niha ew wek beşek ji kêşeyan tê hesibandin, lê ewe jî nikare kêşeyan çareser bike. Ew baskên rejîmê tenê li ser mana wîlayeta feqîh û tepeseriya azadîxwazan.

Kirîza aborî rejîm hisabî xistiye tengaviyê, lê rejîmê nehiştiye ku hêzên tepeserkar û binkeyên etomî tûşî wan kirîzan bin, wate bedbextî û zext bi tewahî li ser xelkê welat e. Birsîtî û hejarî li jiyana xelkê asayî û mamnawendî de xwe nîşan dide, heke ew rewt berdewam be, eva şîrazeya jiyanê dikeve tehlûkê û jiyana xelkê, wê dijwartir be, ku bêguman tenê berpirsên rejîmê sedema vê yekê ne.

Deshilatdarên rejîmê bûna bandeke mafyayî û dahata walat talan dikin û ji wan re jiyana xelkê ne girîng e. Zexta bêkarî û giraniyê li Kurdistanê xelkê gellek perîşe kiriye, û xelk bi neçarî rû li sînoran dike bona peyda kirina bijêwa jiyan axwe û malbatên xwe, lê mixabin roj nine ku li ser sînoran nebne armancên gulleyên hêzên rejîmê.

Ew kesane mixabin li cihê vê ku pariyek nan bo malbata xwe bibin, termên wan bo malbatên wan diçe, û hikumet jî xwe berpirsyar li hemberî wan cînayetan nizanin, û heta tu lêpirsîn li wan nahê kirin, belkû têne teşwîq kirin bona ku li ser kuştinê berdewam bin.

Lê herwek xûya ye çendîn dîktator hatine herifandin û rewşa demokrasîxwaziyê ser hildaye û yek bi yek dîktator têne jinavbirin. Dost û hevalên rejîmê jî ji nav diçin û direng yan zû reşeba wê bigîje Îranê jî, û gelên belengaze Îranê jî wê bigîjin azadiyê. Bêguman gelê Kurd bi piştevaniya hêza pêşmerge wê bigîjin hêviyên xwe ên mêjîn, û hêza pêşmerge wek hêza rigarkerê gel, li nav welat de, bi qevdkiên gulan bêne pêşwazîkirin. Xatircem bin ku ew roj wê her bê.

**Pîroz be 26'ê Sermawezê roja pêşmergê Kurdistanê**

**Silav li PDKÎ, pêkînerê roja pêşmerge û danerê roja Pêşmerge**

**Silav li canê pak yê şehîdên pêşmerge û malbatên wan**

**Silav li kêmendamên çepera pêşmergatiyê, ku beşek ji cesteyê xwe pêşkeşî xaka pîroz ya nîştima kirine.**

**Silav li girtiyê siyasî li girtîgehên rejîmê de**

**Silav li gelê Kurd piştevanê heredem ê PDKÎ û hêza pêşmergê Kurdistanê**

**Hûn jî her şad bin**

**Deftera Siyasî**
**26.09.1391**



# Rojavayê kurdistanê, derfetek din yan metirsiyek din?

Wî: Moitesem Nûranî



Xortên Kurdan li Rojavayê Kurdistanê, xaka nîştimana xwe diparêzin

Çekdarên artêşa Azad a Sûriyê li Serê Kaniyê nehatibûne ku şer tevî dujminê xwe ê sereke, wate leşkerên Beşar Esed bikin. Ew hatibûn êrîşî ser Kurdan bikin û tevî Kurdan şer bikin.

Ew rikeberiya ne tenê dibe sedema şerek tundûtîj û tewaya Sûriyê bi xwe ve digre, belkû çavnihêriyên gellek bi tirs piştî herifîna rejîma Beşar Esed jê çê dibe. Ji ber ku niha hêdî hêdî ew tirs dibe rastiyek, li nav girûpên qewmî de ku li hemberî yektir de her hemû jî çekdar in, rîzbendiyan serî hilda ku piştî nemana rejîma Esed li ser deshilatê rikeberiyeke xûnîn pêk tê.

Kurd li bakûra Sûriyê, hêvîdar bûn ku li şerê xûnîn ê navxwe li Sûriyê de bi dûr bin. Eva amadekarî kiribûn ku piştî nemana rejîma Beşar Esed û serkevtina şoreşa li Sûriyê de, bi awayek aram hikumetek otonim ji xwe re pêk bînin. Lê hêdî hêdî gellek bê rehmane, ew ber bi şerekî nexwastî ve têne rakêşan. Niha ew yek weha tê şirovekirin ku otonomiya wan jî bi armanca Balkanîzekirina welatê wan e.

Dîvlî Fazil Elî ciwanekî 18 salî ku ji tirsê şer reviyaye, niha li kempa penaberên Kurd de rûniştiye, dibêje: " em hikumetek Kurdî dixwazin, em dixwazin ku me xwendegeha xwe hebe û bio zimanê xwe bixwînin, nexweşxane me hebin. Em hikumetekê dixwazin ku me wek neteweya Kurd qebûl bike, û îtirafê bi pênase û şûnas aKurd bike".

Ew şer û kêşeya di navbera Kurd û Ereb li pêşeroja Sûriyê de encamek nediyar lê dikeve. Niha opozisyona dijî Beşar Esed rojane bihêztir dibin, û têhn û gurriyek nû bi xwe ve digrin û hikumeta Sûriyê jî roj bi roj lawaz dibe û nikare kontrola welat bike. Çavkaniya leşkerên rejîmê ketiye dest serhildêran de, û gemaroya Dîmeşqê dane û ber bi balafirxanê diçne pêş. Lê opozisyona Sûriyê ku beşa herî zêde ya wê ji Erebên Sunnî pêk tê, û beşek bi bandor ji tundrewên Îslamxwaz û Elqaîdeyê di nav de ne, ne tenê dûrdîmenek bi tehlûke ji bo rijava heye, belkû li pêşerojê de, Mesîhî, Kurd, Şîe, û Dirûzî yek digrin.

Li şerek weha xûnîn li navbera hikumet û opozisyonê de heya niha zêdetir ji 40 hezar kesî hatine kuştin. Wek şerê tayifî û ayînî li Îraqê, piştî dagîrkirina wê ji aliyê Amerîkayê ve. Şerê wan dawiyane ê Kurd û Ereban li Sûriyê gellek wek şerê navxwe ê Îraqê diçe. Jiber ku Sûriye jî çend neteweyî ye, çend ayînî û çend kulturî ye, û her hemû jî nîrê êxsîriyê li ser milê wan bûye.

Lêkoler ditirsin ku ew agir bilez herêmê dabigre, ku nîşaneya bûyerek tal e, û jêve ne ku şerek xûnîn, û tund a netewî, ya tîre û taqmên ayînî lê dikeve, û aliyê din yê sînorên Sûriyê bixwe ve digre, û bi taybet Kurd jî tevlî vê aloziyê dibin. Kurdên başûr bona bergiriya ji Kurdên Sûriyê tûşî şer dibin, herweha ew kêşe Turkiyê jî bixwe bigre. Jiber ku herêmeke otonom li Sûriyê dibe sitarek baş ji bo Kurdên Turkiyê.

Marya Fantapî lêkolere Îraqî ye ji girûpa aloziyên navnetewî de, ku alîkariya amadekirina raporekê dide li Kurdên Sûriyê, dibêje: "tehlûkeya berengarbûna Kurd û Ereban li Sûriyê li vê yekê de ye, ku renge Kurdên Sûriyê bo parastina xaka xwe daxwaza hêza alîkar ji Kurdên cîran bike.

Kurdên şerker li başûrê Kurdistanê li warê leşkerî de hatine perwerde kirin ku li dema xwe de bo Sûriyê bêne şandin ku ew yek jî kêşeyê aloztir û kûrtir dike.

Ew dibêjin ku berî serhildana Sûriyê, Kurd li serê kaniyê bi awayek aştiyane bi Erebên cîran re dijiyan, lê vî şerî ew pêwendî tevlîhev kirin. Serhiladên herêmê derfetek da Kurdan ku xewnê bi Kurdistanek yekgirtî û serbixwe ve bibînin ku ew yek jî, berev rastiyê diçe. Kurd li Sûriyr, Îraq, Turkiye û Îranê de xebatê dikin bo destveanîna deshilat, ew yek digrin û li Rojhilata Navîn de dewletek bihêz a Kurdî pêk tînin.

Dr. Berhem Salih serokwezîrê pêşîn ê hikuemta herêmê dibêje: "di sedsala bîstemîn de zulm ji Kurdan hatiye kirin, mafê me, şûnasa netewî ya me, pênaseya me, bi awayek hovane hatiye binpêkirin, piştî vê hemû qurbanîdanê, û wan hemû êş û azaran, niha dema vê hatiye ku Kurd jî bibe xwediyê mafên xwe ên netewî û rizgar bibe".

Li wir li nav vê mij û dûmanê de Kurd têne tawanbar kirin, û serhildêr dibêjin ku Kurd alîkariya rejîma Beşar Esed dikin. Kurd jî ji vê nîgeran in ku serhildêr tu bernameyeke wan li derheq mafê Kurdan piştî nemana Beşar Esed tunine. Di hemen dem de girûpeke bihêz a çekdare Kurd ( PYD), KU çiqeke pkk'ê, nêzîk bi 30 salî ye ku bo mafê netewî ê Kurdan li Turkiyê de xebatê dike.

Turkiye jî PYD'ê bi alîkariya tevî rejîma Beşar Esed tawanbar dike. Ew yek jî bûye hêcet bo vê piştgiriya berfire ku Turkiye ji serhildêrên Sûriyê dike û ew yek jî bûye sedema destêwerdana Turkiyê li nav kirîza Sûriyê de û nîgeran in ji rewta parçeparçebûna Sûriyê. Heke Kurd bikarin bigîjin mafê xwe, wê rewşek aloz ji bo Turkiyê çê bibe.

Kurd dibêjin ku serhildêrên Sûriyê ku hatine Serê Kaniyê, beşek ji wan îslamiyên tundrew bûn. Piştî ezyetkirina xelkê gundê wan şevitandin û talan kirin. Bi zorî dixwazin ku Kurdistanê bikêşne nav şerek xûnîn û nexwastî, jiber ku Kurdistan aram e û Kurd mijûlî jiyana asayî a xwe ne, hem Turkiye û hem serhildêr dixwazin aloz bikin.

Kurd hem ji aliyê rejîma Beşar ve hatine çewsandin, û hem jî serhildêran tu tişt ji bo pêşeroja Kurdan tuninin.

Çavkanî: www.nyTimes.com

**Doma nûçeya R:1'ê**

Her di vê pêywendiyê de Dr. Mîro Eliyar bi nuêneratiya PDKÎ axivî û got: "Bo PDKÎ, cihê şanaziyekî mezin e ku vê peymannameyê wajo bike û hemû hewl û cehdê dide ku naweroka biryarnamê bi kiryar cîbicî bike.

Dr. Mîro Eliyar bi nuneratiya PDK Îranê di vê rê û resmê de amade bû û peymannameya parastina mafê jin û zarokan li dema şer de wajo kir.

## Ehmedînija got ku erdên xwe yên zêde bifroşin

**Ehmedînijadê Serkomarê rejîma Îranê, daxwaz ji Sipa Pasdaran, Artêş, binyat û rêxistinên hikûmtî kir ku darayî û edrên xwe ên zêde bifiroşin.**

Navbirî di dehemîn civîna fermande û berpirsên Qerargeha Xatemul Enbiya de ragehand ku Saziya Darayî a Dewletê, niha mijûlî firotina darayiyên xwe ên zêde ye.

Ehmedînijad tekez kir ku sipah û Artêşê darayî û erdên zaf di raserî welat de hene ku dikarin dest avêjin firotina wan.

Parlemêntoya Komara Îslamî pêştir rê dabû dewletê ku bi buhayê 335 hizar milyard qiranan, darayiyên ser bi dewlet, sazî û şirketên ser bi wê bifiroşin.

Agirî 7
Hejmar 196, 20'ê Çileya Pêşîn a 2012

# Deshilatxwaziya Morsî, kolanên Mîsrê hejandin



Dara Natiq

Gelê mafxwaz ê Mîsrê ku heyamê dehansalî bû ku li jêr deshilata sîstema daxistî û dîktatoriya Hosnî Mobarek û kirêgirtiyên wî de wek beşek ji gelên zulmlêkirî ê herêmê li jêr zordariyê de û bi ew qasê dilequtkê jiyana xwe diborandin, û jiu mafên herî destpêkî ên xwe bêpar bûn, û wek dîlên serdemên kevn divêt peyrewê fermanên Zehakê serdemê xwe ban. Ew gelê belengaz li destpêka Buhara Erebî de li helwestek cesûrane de qada Tehrîra Qahîreyê kirna qada berxwedan û berêkaniya li gel hukmê dîktatorane ê malbata Mubarek û li pêxema destveanîna azadî û kerameta mirovane a xwe de, û rizgarbûna li jêr zulm û zordariyê de, meşek bi milyonî rê xistin heya ku karîn rejîma Mubarek li ser kar rakin.

Mixabin li pêvajoya şoreşa gelê Mîsrê de, Îxwan Elmoslimîn ku wek gur xwe li pêstêpez de veşartibûn û li malên xwe bose danîbûn, bi bê beşdarîkirin û dana nirxek wusa li pêvajoya bûyerên li Mîsrê de, û li demên dawiya bi encam gihîştina şoreşê, û li ser karrakirina hukmê dehan sale yê malbata Mubarek, hatne meydanê û bi organîzekirina xwe û dana dirûşmên bi berçav û xapîner, li hilbijartina serkomariyê de, bi serêxistina bernbijêrê xwe wate Muhemed Morsî, riya rast ya pêvajoya demokrasîxwaziyê li vî welatî de ber bi aliyek din ve birin, û îradeya paşvemayî a xwe bi ser gelê Mîsrê de sepandin. Serkevtinek ku Komara Îslaiya Îranê, tevî piştgirîkirina ji wê, ew wek doma şoreşa Îslamî, û hişyariya Îslamî li herêmê de bi giştî, û li welat de bi taybetî hesiband û propagendeyek zêde jî jêre kir.

Mihemed Morsî serokê hilbijartî ê Îxwanê, ku soza vejandina aboriya welat û bersivdana bi tewaya xwesetkên xelkê li ser bingeha parastina kerameta mirov û azadiyên bingehîn ên mirov li heyamê sed rojan de dabû, ne tenê li ser sozên xwe nema, belkû welatê Mîsrê tûşî kirîzek mezin piştî deshilata Beşar Esed kir. Navbirî gellek zû rûyê xwe ê rastîn bo cîhanê û bi giştî û xelkê Mîsrê bi taybetî eşkere kir. Navbirî dixwaze ku bi zêdekirina deshilata xwe li yasaya bingehîn de, û dariştin yasaya welat li li ser bingeha ayînê Îslamê û hinek yasayên li gorî sedsalên navîn, û dehan biryarên yasaşikên, dixwaze ku wek serdemê Xumênî ezmûna sîstema dîktatoriya Komara Îslamî li vî welatî de biceribîne, û bi eşkereyî û bi sepandina wan yasayan, her cure azadiyekê li geviyê de bifetisîne, ku taze li jêr deshilata Mubarek ew jî bi gorîkirina xortên gelê xwe rizgar bûne.

Lê ya ku li wir de girîng e, ew e ku xelkê hişyare Mîsrê carek din tevî baykotkirina referandoma Yasaya Bingehîn, ku çavkanîgirtî ji bîrûhizra paşvemayî a Morsî û peyrewên wî ye, hatne ser şeqaman û cardin qada Tehrîra Mîsrê kirne qada berxwedana xwe, û rikeberiya li gel her cure yasayek paşvemayî û dijîmirovî, û bi vî awayî ji bo parastina mafên xwe ên mirovî û cihgirkirina pirensîpên demokrasiyê, paşekêşe bi Morsî kirin. Herweha Morsî ragehand ku ew yasa demikî ye, û ew amade ye ku ji deshilata xwe kêm bike.

Di rastî de ew paşvekêşana Morsî û li hemberî pêla demokrasîxwaziya xelkê Mîsrê nîşaneya wê yekê ye ku xelkê hişyar û serwext ê Mîsrê bi tu awayî naxwazin ku qeder û jiyana niha û pêşerojê a xwe gorî bîra paşvemayî a Morsê bikin û li jêr hukmê yasa û rêsayên ehrîmenî û li gor sedsalên navîn, ên wek komara sêdare û îdamê a Îranê de bijîn.

Li hemen dem de berevajiya propagendeyên rejîma Îranê, ku encama şoreşa Mîsrê û welatên din wek hişyariya îslamî dihesiband, selmandin ku xelk Mîsrê xwazyarê pêkanîna civakek modern in ku têde rêz û hurmet ji kerameta mirovan bihê girtin, ne eva ku ew bibin kole û dîsan bi qedera wan bê lîstin.



## Rojev

# Çar sînaryoyên lêkolerê Êşpîgêl derheq pêşeroja Sûriyê



W: Kamyar

**Sînaryoya yekemîn: Serketina şoreşgêran**

Şoreşgêrên Sûriyê dikarin herêmên mezin ên welat bixin bin kontrola xwe û alîgirên rejîmê jî birevin û xwe veşêrin. Hêzêzn şoreşgêr bi serkevtin derbasî bajarê Demişqê dibin û Beşar Esed jî destbider dikin. Temenê rejîmê bi dawî tê û şoreşgêr digîjin serkevtinê. Piştre bi hevkariye 130 welatên ku lihevhatina netewî ya Sûriyê bi fermî nas kirine, dikevin hewla rêxistina qonaxên din.

Lêkolerê Îşpîgêl, egera rûdana vê sînaryoyê kêm e, çûnkî di Sûriyê de şoreşgêr weke girûpêk bihêz nahên hesibandin. Lewma dibe li ser egerên pêkhatina pêvajoyên ku di bin de amajê pê dikim tekez bikin:

**sînaryoya Dûyemîn: Çêbîna girûpên şerxwaz**

sinaryoya şerxwaziyê mideheke ku çêbûye û dikare serbarê vê ku Beşar Esed zindî bimîne yan jî ji nev here, her karê xwe bidomîne. Lewra hêz di navbera aliyên cur bi cur ên girêdayî bi deweran ve tê parvekirin. Sînorbendiyên hêzên çekdar li ser bingeha cudahiyên qewmî û mezhebî cih digire. Bo mînak girûbên tundrew, Îslamiyên nermrew, girûpên cur bi cur ên kurd, Mesîhî, Dirûzî, Elewî û Şîeyan. Esed û alîgirên wê dikerin yek ji wan girûpan pêk bînin.

**Sînaryoya sêyemîn: Gotûbêj**

Hindek ji deshilatdarên nêzîk ji Beşar esed gehiştine vê encamê ku êdî nikarin guhertinê bi qazancê xwe bikin. Lewma digel şoreşiyan dikevin gotûbêjen û garantiya vê yekê bidin wan ku di dahatiya Sûriyê de beşdar dibin. Beşar Esed jî ji deshelatê dûr dixin yan jî dixin girtîgehê û yan jî tebiîd dikin.

Ev sinaryo jî di çarçoveya egerê de ye, jiber ku welatiyê Sûriyê dixwazin rûçika aştiyê bibînin. Lê sinaryoya han pêş şertan li xwe digire; Rûsiye dibe li ser vê yekê razî be û di gel Amerîkayê bigîjin encamê. Di navbera organên deshelatdar ên derdora Esed, dibe hindek kesatî hebin ku bikarin li hember Beşar Esed dest havêjin kudetayê. Lê heya niha wusa xûya dike ku tiştek wehanahê kirin.

Şoreşgêr jî dibe li ser garantiyên ewlehî di gel kêmaniyên Sûrî lihev bên, da ku ev kêmanî, şoreşiyên çekdar nebin.

**Sînaryoya çaremîn; destêwerdanên derekî**

Destêwerdanên derekî ên leşkirî dikarin rejîma Esed bi davî bînin. Lê egera vê ku rojava û hevpeymanên we êrîşa leşkirî bikin ser Sûriyê tu nine. Amerîkayê bi çendîn caran ragehandiye ku, êrîşa leşkirî bo ser Sûriyê di demekê de tê kirin ku Esed çekên komkuj bikar bîne.

Egera vê yekê heye ku piştî nemana rejîma Beşar Esed, hêzên derekî êrişek armancdar bikin ser Sûriyê, da ku bikarin dest bi ser çekên komkûj de bigirin. Lê bi êrîşek han dibe 57 hizar çekdaran bixin kar.

Bi baveriya lêkolerê Îşpîgêlê, rejîma Sûriyê niha jî dikare hisabê li ser alîgirên xwe Îran, Hizbulla û Rûsiyê bike. Lê ev yek dibe bi tewahî bê jibîrkirin ku car din rejîma Başar Esed bikare bi ser seranserê Sûriyê de hukimraniyê bike.

lêkolerê Îşpîgêl di daviyê de dibêje ku, bi jiberçav girtina rewşa niha ya Sûriyê, egera herî mezin sînaryoya şerê navxwe ya dirêj heyam digel Esed yan jî bê Esed e.

# Rewşa jinê di civaka kevneşop a Kurdan de



Sefiye Xalidî




**T**u ey dengê bahoz û baran û berxwedanê, tu ey bêhna sosin û beybûnan, çiqas te bêhn dikin û mest dibin û şûna ku xûnavan birijînin ser pelg û guliyên te ,di nav destê xwe da bêrehmane te diçirmisînin û hişk dikin! bi sedan car te pirs kir çima?

lê pirsa te her bê bersiv dimîne Çima? Di wê serdemê pêşkevtin û roj bo roj nûbûna dinyayê de, em hîna jî paşvemayî ne, û gellek edetên kevnar cem me mane û dikevin canê me û hertim nexweşî û kêmasiyan diafirîne. Lê sedem ne ew e, ku em dewletek serbixwe nînin. Sedem nebawerî û nepejirandina rastiyê di nav civaka me de ye. Nepejirandina vê rastiyê di aliyê mêran ve, ku jin heye û di hemû qonax û derfet û bûyerên jiyanê de, di gel wî yek pişk û beramber e.

Rureşiyek mezine ji bo me ku jin bi navê namûsê tê kuştin , û bi navê çinezan û kêmmêjî tê nasandin! Rûreşî ye ku hîna kultura jin bi jiniyê berdewam e, û hîna jî ji bo ku sulh û aştî bikeve navbera şerê du malbatan de, jin dibe qurbaniyê her du malbatan!

Rureşiyek mezin e ku tu birayê min, bavê min, zilamê min, hîna jî di nav bajêr û gund û di nav biyanî û xûyaniyan ji xwe re eybek mezin dizanî ku pêngavên xwe di gel pêngavên min pavêjî ....

Kultur tê guhertin , adeta zilm û zoriyê, bêhurmetiyê, bi çavê biçûk dîtina jinê, biguherînin.

Çima jin ewqas bê nirx e ku bi hêsanî tê kuştin û firotin? Çima mêr nikarin bi çavê ku mafê wan wek însan yek e, li jinê binêre û hertim wê ji xwe bicûktir nezane?

Çima dema ku tu birayê min hewceyiya xwe jinê re dibînî, vê demê rêz jê digrî, û nirxê didî wê, û dema ku tu pêwîstiya xwe jêre nabînî, wê binpê dikî û davêjî?

Jinan gellek xewnên şîrîn û armancên rêk û pêk hene, xewnên wek ku rojekê ji rojan bibin endezyar, duktur, mamoste, helbestvan, sitranbêj yan ekter û ...hwd, ne ew baweriyên çewt û şaş, ku derbarê wê de, têne gotin!

Bingeha kurdewariyê ne mîna îro ye ku derheq jinan bêhurmetî tê kirin ji ber ku di dîroka kurd de hertim jin mil bi milê mêran bûne .

Tu caran we pirs kirî ye ku em di kîjan serdemê de dijîn? Çima gellek adet û kulturên qirêj wek pirr jiniyê ku ji hêla dewletên serdest û dewletên din we hatine nav me de, em dipejirînin? Gellek dewletên ku kultura pirjiniye hene, ketine derdora miletê kurd, weke nimûne, xelkê Ereb ku jin dikare ji mêrê xwe re jinek din bixwaze, ew diyardeyek nebaş e ku bandora xwe xistiye ser rewşa kurdan jî, lê jinên kurd bila wisa nekin, bila dîsan wek çiya bin û wê bêqîmetiyê nepejirînin û bikevin hizra zarokên xwe de, ku ew fêrî vê adetê nebin, bila tirs nekeve nav dilê wan û mêrê kurd bila wê xirabiyê derheq kultur û welatê xwe neke.

Çima her roj em bibihîsin ku jin di aliyê mêran ve tên kuştin, şewitandin, bi zorî zevicandin, bêparkirin ji xwandin û zanînê. Ew baweriya ku mêrên kurd mafê jinan binpê dikin û aciziya wan dikin, vedigere bo 1500 salî berî niha ku di mêjiyê kurdan de hatiye çandin.

mêren kurd bila bi çavê dilovaniyê li jinan binêrin û bi erzanî û kêm lê nenêrin, û rêûresmên kevnar û qirêj nepejirînin.

Çendîn adetên xirab derheq jinan di nav civaka kurdan de hene ku mixabin hîna jî berdewam e, û tenê mêr suçdar e li hemberî wê rewşa ne durust, ku mixabin dibe sedema wê yekê ku nifşa nû ya Kurd, wê kulturê hîn bibe û di nav civakên pêşkewtî yên dunyayê em serşor bimînin û rê li pêşkevtina miletê kurd di hemû wara de bigre girtin.Weke nimûne reftarên hindûrî malbat û civakê di gel jinê, ji aliyê mêr ve.

Mêr mafê ku heqaretê li jinê bike, jêre xeberan bide û lê bide bi xwe re dibîne.

Bav û kur, serîtevandina misoger ji jin û keçan dixwazin, ger serî daneynin, lêdan û xeberan ji wan re rewa dibînin.

Li gelek deveran jin, hîna li gorî kêfa mêran, di paş perdan de û di bin xêlîyan de tên girtin

Hîna jî gellek law dikarin ji dê û xwîşka xwe re xeberan bidin.

Di vê serdemê de, herêmên ku hîna keç lê tên sunetkirin heye.

Li gellek herêman bav keçên xwe berdêlî didin mêrên bi jin, yan jî ser bi hevî dişînin, yan didin mêrên bi temen.

Dema ku jin bimre, mêr dikare bi hêsanî û eşkere bizevice, lê gava ku mêr bimre, jin nikare bi hêsanî bizevice û dema ku dizevice jî, ji ber gotin û nerazîbûna kes û karan nikare rojek bi rehetî û hêminî jiyanê bidomîne, û hertim bi dîtinek cuda lê dinêrin.

Mêr wek karmend, karzan, muxtar, serokşaredar, wekîlê milet û ...hwd dikarin rêveberî û seroktiya civatê bikin, lê jin, di civaka Kurd de, nikare karekî bi vî rengî bike, jinên ku karîne karek bi vê şêweyê bi dest bînin, gellek astengî derbas kirine û gellek hêvî û hesret qurbanî kirine.

Kêfa mêr çi mode cil bixwaze, dikare bikire û li xwe bike, lê keç û jin cilê ku mêr nexwaze nikare li xwe bike. (Dema ku li gor zewqa xwe cilûbergan li xwe bike, û xwe bixemilîne, gişt mêrên derdorê bi dîtinek neba, lê dinêrin, lê hêjayî gotinê ye ku niha qîzên kurdan li rojhelatê Kurdistanê gellek bi zehmetî dikarin bi cil û bergên xwe yê kurdî herin nav bajar, jiber ku ji aliyê Rejîma desthilatdar ve tûşî arîşeyan dibin û ji aliyê mêrên Turk û Fars ve bêrêzî ji wan tê kirin, û ev yek mijarek girîng e ku mêrên kurd pêwîst e piştgîriya jin û qîzên xwe bikin).

Ew kesên ku bindestî, û koletiya jinan (ku hejmara wan nîvê civakê ne) biparêze û ji bo viya qanûnan deyne, nezanî, cahilî û seqetbûna wê civakê diparêze.

Lê divê neyê jibîrkirin, azadiya jinê, beramberê azadiya civakê û piştre ya mêr bixwe ye. Nezaniya jinê, dibe sebebê nezanî û şûndemana civakê jî. Ew zaroka tîne dunyayê, mezin dike û perwerde dike.

Helbet mêr bixwazin û nexwazin rewş wê bihê guherandin ji bo ku roj bi roj civaka kurdî têkelî dewletên xwadî demokrasî dibe û di navbeyna mêr û jin wekheviyekê çê dike.

Lê di rastî de çareserî ji dûr ve çê nabe, hewce ye ku peyama aştî û wekhewiyê bigehe destê yek bi yek ji takên civaka kurdî, bila her kes aliyê xwe de, hewil bide ku bêrêziyê derheq jinan nekin, ji bo ku ne jin û ne mêr bi neheqî nekevin bin darê zilmê.

Îro jin di nav çîrokên olî da tê veşartin, tê tepeser kirin û tê xapandin, heya niha di hemû parçên kurdistanê da, jinan çendîn civîn rê xistine û ji bo ku dengê xwe bigehînin cîhanê, têkoşîn kirine, lê dîsan jî mêrên serdest tu tiştî fam nekirine û tu pêngawek ji bo çareser kirina vê pirsgirêkê ne avêtine.

Lê bi rastî ez bi pênûsa xwe çavna dikarim qêrîna dengê Jîlaya 12 salî di bin xêliya bûkiniyê de, û qêrîna dengê Fatîmayê di şevek tarî da, ku gerdena wê di nav destê mêrê wê û birayê wê da bû, û dixendiqandin û laşê nazike wê, avêtin nav ava Noşanê, û çawa dikarim dengê ah û hesreta Menîceyê ku piştî çend salî xwandinê, ji bo zankoya Urmiyê serkevt û gihîşt xeyala xwe ku bibe duktur, lê malbata wê bi zorî û bi mecborî qayîl kirin bedela deynê bavê xwe gel mêrek ku ne zana ye, û jina wê mirî ye û temenê wê li serê ye, bizevice, bigehînin guhê we?

Birêz Mele Qasim Keleşî:

# Di jiyana pêşmergatiyê de, tu zehmetiyekê bi qasî bihîstina nûçeya eziyetkirina malbatên şehîdan ez nerehet nedikirim

Hevpeyvîn: Agirî

**Me wek duheftînameya Agirî vê carê serdana pêşmerge û kadrê jêhatî û fîdakar ê PDKÎ, Mele Qasim Keleşî li nawenda sê a Kurdistanê de kir, û wî jî bi kêfxweşiyek bê mînak pêşwaziya me kir. Di vê serdanê de wî xweşî û nexweşiyên serdemê pêşmergatiya xwe ji me re bas kir û bi wan serpêhatiyên xwe em birna nav kûrahiya wan êş û azarên xwe, yên wê serdemê ku karê nihênî bo hizb û gelê xwe dikir, û piştre jî bû pêşmergê PDKÎ.**



"Ez Qasim Keleşî xelkê gundê Kûrêya serê, li herêma Enzelê li malbatek navincî li 22'ê Xakelêweya 1342'an a Rojî ji dayîk bûme. Wê demê gundê me 60 ta 70 mal dibûn.di temenê heft saliyê de ez çûme xwendegehê, û ew xwendegeh jî navê wê xwendegeha Pêykar bû û gundiyan bixwe ew xwendegeh çê kiribûn. Heta pola pêncê jî min li wir ders xwend.

Piştî wê min li Urmiyê dersa xwe domand, lê tenê min du salan li wir xwend jiber ku şoreşa gelên Îranê taze gihîştibû armanca xwe, û rewş gellek aloz bû û ez jî carek din vegeriyame gund. Lê li ser pêdagiriya bavê xwe min carek din dest bi xwendinê kir.

Her di wan de demên aloz de bû ku ji aliyê kekê Îsmet Ebdî kadrê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ve karê hizbî bi min hate sipartin û min karê veşartî û nihênî bi PDKÎ kir.

Piştî heyamek ez li ser karê hizbî, li nêzîk gundê Sinciyê ser bi dewera Kinarberoja Urmiyê bi 360 wêneyên pêşmergeyan ve hatim girtin, û pênc mehan li binkeyeke Sipaha Pasdran de hatim ragietin, lê min bi tu awayî îtiraf nekir ku ez karê hizbî dikim û min bo wan wêneyan hêcetên curbicur dianîn.heta ez berbirûrê xwediyê ekasiyê jî kirim, lê wî jî got ez wî kesî nas nakim. Ez birme girtîgeha Behrê a Urmiyê û ez salekê li benda takekesî (silûla înfiradî) de mam û ez pênc caran jî birme dadgehê.

Wê demê gellek caş û îxanetkar hatibûn kuştin û şehîd Kerem Keleşî fermandeyekî hêza pêşmerge bû, lewra digotne min ku emê tola wan kuştiyên xwe ji te hilînin. Bavê min gellek pere da wan heya ku hukmê îdamê li ser min rakirin, piştre jî min du salan zîndan kêşa.

Piştî wê jî ez çûme Tehranê û min heyamekê xwe veşart, lê bi sedema vê ku vê carê bavê min girtin û eziyeta wî dikin, ez bi neçarî vegeriyame mal, û rejîmê jî ez bo xizmeta leşkeriyê (serbaziyê) girtim. Wan di dema leşkeriyê de jî tu carî bawerî bi min nedikirin û hertim di dema şevê û dema nobedariyê de gulleyên li ser çeka min derdixistin, lewra min di derfetekê de pêwendî tevî Elî Kaşifpûr girt û min gotê ku ew baweriyê bi min nakin û eziyeta min dikin, lê wî gote min tu li navxwe de karê hizbî bikî baştir e. Lê bi her hal, ez li meha sê ya Buhara sala 1365'an de bi awayeke fermî bûme pêşmergê PDKÎ.

Sala 1365'ê (1986'ê) ez li komîteya hizbê li herêmê de bûm, lewra rejîmê jî ku zanî ez çûma nav hizbê (PDKÎ), Lewra bav û birayê min yê mezin, girtin û birne bo herêma Sêroya Urmiyê û li wir li ber germa rojê, ew xistibûn nav botqeyên hesin de ku li ber tava rojê germ û sincirî bûn.digotna wan ku divêt hûn mele Qasim bînin.

Min du caran diya xwe dît, û diya min gote min ku bavê te ezyet dikin, lê dîsan jî min morala xwe ji dest neda. Herdemekê me şer bi hêêzn rejîmê re dikirn, bilez wan birayê min dibirin û îşkence dikirin, heya birayê min ew qas îşkence kirin ku nexweş ket, û her li encama wan îşkenceyan de jî mixabin koça dawiyê kir. Ew yek ji min re pirr nxweşe ku ez bûme sedema koça dawiya wî.

Di rastî de pêşwaziya xelkê ji me her êş û azarek jiyana pêşmergatiyê bîra me dibir, lê dema me dibihîst û ezyeta malbatên şehîdan dikin ew yek gellek nexweş bû".

Mele Qasim Keleşî, kadrê qehremane rojên tengaviyê derbarê reftara bi dîl û êxsîrên şer re weha axivî:

"Dr. Qasimlo gotiye ku em şanaziyê bi kuştina birayên xwe ên Îranî nakin, lewra me jî hurmeta dîlên şer digirt. Rojekê me girûhbanek rejîmê bi dîl girt, û piştî girtinê me gellek hurmeta wî girt û me heta cigare û vexwarin jî dayê. Wî got ez kesekî pilebilin dim, divêt cezayê min zêdetir be, lê me gotê Dr. Qasimlo gotiye me ku hurmeta dîlên şer bigrin. Wî got di rastî de ya ku rejîmê li ser we digot ne wusa ye".

Mele Qasim şehîdbûna hevalên xwe, wek rojên herî nexweş yê jiyana pêşmergatiyê binav kir:

"şehîdbûna hevalan gellek nexweş bû. Wê demê ku li çiyayê Mencel (li devera Kinarberoj a Urmiyê) de şer hebû, em jî li cihek din bûn, û min nedizanî ku hevalê min Hecî Xeregoş şehîd ketiye. Lewra min li Tûrkê xwe de hinek şirînî derxistin û min gote hevalekê xwe ku wan şiriniyan bo Hecî Xregoş bibe. Lê ji nişkêve gote min mixabin Hecî li şerê Mencel de şehîd ketiye.

Wê demê ku Seyîd Resûl fermande hêz bû, û ez jî kadrê dermanî bûm, me avête ser binkeya Kelan kaniyê, li vî şerî de Celal Nebîzade ku cîgirpel jî bû, bi tund birîndar bû. Wî li ser çokên min got, tu xwedê min li vir cî nehêlin. Lê gellek nekêşa ku li cem min tewaw bû û tevlî karwanê şehîdan bû.

Carekê jî li pişt gundê Xirabeya ser bi Kinarberoja Urmiyê, em tevî caş û kirêgirtiyan tûşî şer û pevçûnê bûn. Wê demê Husên Sitwet berpirsê vê tîma me bû, û ez jî cihgirê wî bûm. Me çil deqeyan şer kir. Caş rabûn û gotin em teslîm bûn, nebêje eva pîlane. Mixabin hevalekî me rabû serpiyan, lê ewan ew heval şehîd kirin. Min zû zanî ku hevalê me yê bi navê Feysel şehîd ket, lê bona vê ku heval bi moralek bihêz ve şer bikin, min negote wan ku Feysel şehîd ketiye, heta dawiya şer hemiyan zanî ku ew şehîd bûye.

Ez bixwe jî du caran birîndar bûme, carekê bi şaşî min û hevalekî xwe li dema şevê de, me yektir bi gulleyan birîndar kir, û carekê jî li sala 1368'an li gelê Gder, ez bi xompareyê birîndar bûm".

Mele Qasim Keleşî ku dema xwe li gel wan 59 ciwanên Mehabdê ku piştre hatin bidaervekirin li girtîgehekê de bûye, weha basê wan rojên dijwar ên li girtîgehê de dike:

"Berpirsyarên girtîgehê gotne me ku îro, we gellek mêhvan hene. Nebêje ku armanca wan ew 59 ciwanên Mehabadê ne. Ew hemû li jêr 27 saliyê de bûn, û di rastî de xwediyê moralek bihêz a netewî bûn. Kesên gellek têgihîştî û netirs bûn û qet jî li hemberî gefxwarinên berpirsên girtîgehê de serî netevandin, lewra jî ew hemû îdam kirin. Wê demê hêza Bîston 59 emeliyatên qehremanane li tola wan şehîdan de encam dan".

Mele Qasim Keleşî me re bas ji çavaniya pêkanîna jiyana hevpar jî kir ku di rastî de em gellek bi hevre keniyan û demek xweş me derbas kir, em mioxabin li ber kêmiya cih nikarin bi hûrî hemiyê bas bikin. Kurtiya vê serpêhatiyê derheq jiyana hevpar weha bû:

"sala 1372'an me jiyana hevpar pêk anî. Hevjîna min xizma min ya nêzîk e. Min sê zarok hene bi navên Aştî, Zozan û Agirî. Min navê Aştî bi vê sedemê danî ser keça xwe, ji berku li roja pêkhatina aştiya navbera du hêzên Kurdistana başûr de keça min ji dayîk bû. Zozan jî bi vê sedemê ku em gellek li zozanan de mabûn. Agirî jî navê pêşmergeyekî me bû ku min jê pirr hez dikir".

Mele Qasim keleşî ku xwediyê gelek berpirsayetiyan li dema pêşmergatiya xwe de bûye, weha gotina xwe ya dawî tîne ziman:

" Ez dibêjme her kurdekî xwedîvijdan, ku me her serbilindiyek hebe, ew serbilindî encama xwîna şehîdan e, lewra hewce ye ku xortên me yên Kurd tu carî vê yekê ji bîr nekin û ya ku di warê xizmeta bi malbatên şehîdan, ji destê we bihêt, divêt xemsariyê nekin, û bi alîkariyên xwe wan dilxweş û hêvîdar bikin".

# Şaristana Qurwe



Mecîd Cinîkanlû



Şaristana Qurwê yek ji Şarsitanên parêzgeha Sinê a rojhilatê Kurdistanê ye. Şaristana Qurwê di deşetekî pan û berîn li 90 kîlomêtriya rojhlatê bajarê Sinê cih girtiye. Nifûsa wî bajarî 65842 hezar kes e. Şaristana Qurwê xwediyê gellek çiyayên bilind e ku li hemû demên salê de, bi befrê hatine dapoşîn, ku em dikarin îşarê bi Bedir, Perîşan, Pence, Kolareh û...hwd bikin.

Li herêmê de gellek rûbar û çem wek: Telxe, Tehmasib, Qizil Ozun hene ku çemê Qizil Ozun girîngtirîn çemê vê herêmê tê hesibandin.

Navenda Şaristana han di demên derbaz bûyî de gundek bi navê Qislan li 8 kîlomêtriya bajarê niha yê Qurwê bûye ku bi destê kesekî bi navê Emanullah Xan, waliyê Kurdistanê hatiye çêkirin.

Bajarê Qurwê seba cih girtin li ser rêya Hemedan-Tehranê û cihê xwe yê sirûştî û hebûna Deştên mezin yê kiştûkalê û çavkaniyên jêrerdî bi yek ji herêmên herî zengîn yên Kurdistana Îranê tê hesibandin.

Qurwe xwediyê cihên gellek xweş ji bo geriyanê ye, û seba hebûna kaniyên ava gerim û seyrangehên gellek xweş û bedew li herêmê salane hejmarekî zaf ji torîstan serdana vê herêmê dikin:

Cihê niha yê bajarê Qurwê li sedsala 9'an paşve bi Elî Şeker dihat naskirin. Derbarê navê Elî Şeker tê zanîn ku Elî Şeker navê Emîrekê bûye ku li herêma Hemedanê deshiltdarî kiriye.

Çavkaniyên dîrokî vê yeke xûya dikin ku Qurwe ne tenê wek bajarekî li serdemê Qacaran de, belkû wek yek ji navendên gundên herêmê dihat hesibandin ku xwediyê girîngiyekî taybetî bûye.

Seba çêkirina rêya Hemedan-Sinê û bi derbaz bûna çax, pêgeha vê herêmê hin zêdetir bû, û bi zêdebûna nifûsa herêmê, Qurwe wek bajarekî girîngiya xwe peyda kir. Li çavkaniyên dîrokî de bas ji vê girîngiyê hatiye kirin ku di dawiya deshilatdariya Qacaran de bûye. Cihê yekem ê bajarê Qurwê li tenişt kaniyekê ya bi navê Serab bûye ku li bilindahiyên başûrê rojavayê wî bajarî bûye.

Di sala 1335 heya sala 1365'an a Rojî, seba bihêzbûna rêyên îrtibatî li navbera Sinê û Hemedanê û paşan jî giringiya wî bajarî li derheq navendên çandinî û mezin bûna bajar bi dirêjiya rêya Sinê hemû bûn sebeb ku girîngiya wî bajarî roj bi rojê zêde bibe.

Kurdên Qurwê piranî bi zaravê Kelhûrî dipeyvin û gellekî welatparêz in. Kurdên Qurwê seba cih girtin di sînorê di navbera Kurdistana Îranê û bajarê Tirkan her tim ji aliyê dewleta Îranê ve hatine tepeser kirin û ew yek seba vê hindê bûye ku kurdên Qurwê her tim li nasnameya xwe a Kurdiniyê xwedî derketine. Di gel vê yekê ku piranîya Kurdên Qurwê li ser mesebê Şîe ne, lê disan jî ew yek nebûye sebeb ku ew li tepeserkirina rejîma Îranê dûr bin. Rejîma Îranê gelek zext û givaşê jibo Kurdên wan herêman tîne û li herêmê de gelek cihên leşkerî jibo tepeser kirina xelkê ava kirine.

Kurdên Qurwê li raperîna sala 1357'an Rojî ya gelên Îranê pişikdariyek berçav hebûn, lê piştî raperînê seba wê yekê ku piştewanî ji xwestekên berheq yên gelê kurd dikirin, kevtine ber êrîşa pasdarên rejîmê û mixabin gellek komkujiyên mezin li dijî Kurdên vir hatin kirin.

Dom rûpela 4'ê gotara : " Du bûyerên hewşêwe..."

Lewma serbarê dewlemend bûna Îranê bi çavkaniya gazê, mirov dikare xincî dujminatî, hovêtî û naberpirsatî a rejîmê bi gel û xelkê Îranê re çi bêje? Rejîma ku ketibe talan û dizîna samana xelkê û wan bidoşe, çawan dê bikare xema xelkê û zarokên wan de be? Li halekê de ku soz dabû pereyê neft û gazê bibe ser sifreyên xelkê!

Dema ku yasayek dadperwer, hikûmetek xizmetkar, meclîsek ektîv û çavdêr, berpirsiyarên bi wijdan, dilsoj û mirovdost li Îranê de berçav nekewe, mirov dikare çi dilxweşiyek bi pêşeroja zarokên xwe li bin siya wê de hebe?

Raste bûyera li Amerîkayê de jî cinayet û tirajîdiyek mezin e gorî jî heman zarok in, lê berevajî ya Îranê, ew ne ji ber dîktatoriyet, mîlîtarîzekirin, xemsariya hikûmetê û nebûna xizmetguzariyan û bêwijdaniya berpirsan bû.

Belkî li encama pirsgirêkên rewanî û piskolojîkî ên kesek nesax bû ku bûyerek weha bi jan qewimand. Lê derhal tedbîr û lêpirsîn hatin kirin.

**Berhevdana reftarên her du sîsteman bi bûyeran re!**

Piştî qewmîna tirajîdiya Şînavê, rejîmê li pêregihîştinê de xemsarî kir. Kurdistan mîlîtarîzetir kir. Gef ji hevwelatiyan û malbatên qurbaniyan xwarin ku dibe xwe ji dana her terze zaniyariyekê bi medya û ragihandinan biparêzin. Wezîrê Perwerdeya rejîmê piştî givaşên raya giştî, bi ken, henek û bêrêzî kirin bi xelkê lêborînek sivik ji malbatên goriyan xwast!!!

Ya ji hemûyan balkêştir û bi qasê şevatê tirajîdîk, gotinên pêşnimêjê Tehranê (Ehmed Xatemî) bûn ku li ser van kul û derd û azaran de, rexne ji bêhicabiya keçên şevitî girt!!!

Herweha taltir ji van jî ger bo riyayî û rûyekî jî bûya, kesek ji berpirsiyarên payebilind ên dewletî û hikûmetî amade nebûn serdana qurbaniyan û malbatên wan bikin. Bijantir ji bûyerê jî ew bû ku rejîmê ji tirs û wehşetê re nehişt ku termê qurbaniyan li gund û warê van were binaxkirin. Tirajîdiya Şînavê jî weke bûyerek xwezayî dîtin û wekî pîşeyê hertimî ê xwe, xwe li bin barê berpirsatiyê avêtin.

Lê li Amerîka de, cinayetên han li egera parastina azadiyê û mafê bêreje ya takekesan de qewimî ne. Me dît ku berpirsan serbarê lêpirsînek xurt bo vê tawanê, soza çareserkirin û rêgirtina ji ber dubarebûna tirajidiyên han dan. Herweha 4 roj bi tazî û matemîna giştî li USA de hat ragihandin.

Kesê yekem ê Amerîka ku serkomar bû, bi xwe derkete qadê û û bi kelogirî û rondikan ve ragihand ku ez ne wekî serkomar, belkî wek bavekê diaxivim û bi axaftinên girîng, bisoz û balkêş ên xwe hevxemî bi malbatên goriyan û xelkê Amerîkayê re kir û çû seredana wan û soza xebatek bingehîn bi dûr ji meseleyê siyasî bona dawîanîn bi tirajidiyên han da.

**Encamgîrî**

Rejîma ku amade nebû bi malbatên goriyên Şînavê û xelkê Kurdistanê re hevxemiyê bike, li gavek çavnihêrnekirî de ji aliyê serkomar û berdevkê wezareta karê Derve re peyamek sersaxiyê bo gelê Amerîkayê hat şandin. Ecêb e! Çi qewimiye ku li 10 rojan de wijdana wan hejiya ye û rûyê mirovdostî, evîn û dilrehmiya berpirsiyarên rejîmê bişkivî ye û xwe bi şirîkê xemên xelkê Amerîkayê dizanin? Bêguman, eva pilan, senaryo û sîgnalek din e bona xapandina Amerîka û vekirina deriyê be hesaba xwe ''diyalogê'' bona kuştina demê û kêm kirina givaşan li ser xwe li dawiya temenê xwe de ku bi tewahî li hemû cîhanê de hatiye îzole kirin.

Bi giştî mêjdem e ku kakil û naveroka dijî mirovî yê Komara Îslamî ji xelkê Îran û cîhanê re eşkere bûye, lê li van bûyeran de dîsan rûçikê dijî gelî ê rejîmê eşkeretir bû û hêrs, kerb û kîna xelkê bi taybetî yê kurdistanê ji rejîmê re zêdetir û rûreşî her ji rejîmê re ma.

Bêguman ahîn û nalîna zarokên Şînavê ji ber êş û azarên cesteyên şevitî, pirçên kuzirî, rûmetê tevlihev û herweha rondikên dayîkên reşpoş û bavên dilbirîndar wê pêsîra wan bigre ku bo demek kurt jî neketin hizr û xema wan û tirajîdiyên han tu tesîrek ji dilê kewir û wijdana nivistî a wan nake.

Lewma li vê bûyerê de jî şeremzarê dîrok û mirovahiyê tenê rejîma Komara Îslamî bû ku ew zarokên bêguneh şermezar ji rûmetê xwe kirin.

# Zarokên Şînawê, zarokên Amûdê anînîn bîra me



Nûredîn Sofîzade



**R**oja 15'ê Sermawezê li gundê Şînawê ser bi bajarê Pîranşarê bi sedema agirgirtina sobeya neftî ya ku odeya dersxwanan pê dihate germkirin, mixabin 36 zarokên keç ên dersxwan di qonaxa destpêkî a xwandinê de li nav peşqel û dûmana agir de asê man.

Piraniya wan zarokan li ber şevitîna giran bo nexweşxaneyên bajarên Urmiye,Nexede û Pîranşarê hatin veguhastin.

Di ratsî bilavbûna vê nûçeya tal û dilêş, jan û êşek giran xiste nav dilê her kurdekî li her cihekê ku lê dijîn, û bi awayên curbicur di gel malabat û kes û karên wan zarokan hevxemî û hevderdî kirin.

Partiya demokrat a Kurdistana Îranê û Komeleya Şorêşger a Zehmetkêşên Kurdistanê jî li vê derheqê de daxûyaniyek bilav kirin û di vê daxûyaniyê de tevî hevderdîkirina li gel malbatên qurbaniyan, berpirsyarên rejîmê li hemberî vê bûyerê de bi berpirs û tawanbar dane zanîn.

Zarokên nawenda Nêrgiz jî bi çavên tejî ji rondik û dilê tejî ji xem li vê hewayê sar, li ber deriyê nexweşxaneya Azadî a PDKÎ li Koyê de, li dewra hev kom bûn, û hewderî li gel malbatên qurbaniyan kirin, û ragehandin ku êş û azarên li ser leş û cesteyê we, dilê me hemiyan azar didin.

Ew dîmenên wan zarokan ku li wan çend rojên borî de li ragehandinên giştî de hatin bilavkirin, ew qas nexweş û dilêş bûn ku rondik ji çavên her mirovekî xwedîvijdan dianî xwar, û rast dîmenên şevtina wan zarokên Kurd yên li Sînemaya Amûdê de li nav agir de şevitîbûn radixiste ber çavên mirov.

Herweha bûyera şevitîna xwendegeheke keçan ya herêma Çarmehalê Bextiyarî, û şevitîna Sînema Rêks a Abadanê tîne bîra mirov.

Di serdemekê de ku divêt zarok bi xatircemiyek zêde, û bi bê tirs ji bûyerên weha herne xwendegehê, lê giringînedana berpirsyarên rejîmê bi xwendegehan û nedanîna îmkanatên baştir li gorî vî serdemî, û bikaranîna sobeya neftî ew jî li demekê de ku li gorî zanyariyan lûlekêşiya gazê bo gundê Şînawê hatibû kirin, mixabin bûyerek weha dilêş û cergbirr diafirne.

Lewra xûya ye nedanîna sîstema germkirina bi gazê li xwendegeha Şînawê de, ew qasê bêxemî û xemsariya berpirsyarên rejîma Îranê derheq giringiya canê zarokên Kurd nîşan dide, û ew xemsariya wan divêt ji aliyê malbatên qurbaniyan ve wek karekî bi zanabûn û wek tawan bê nasîn.

Niha jî gellek xwendegeh li Îranê de hene ku li gorî sitandardên hewce nehatine çê kirin, û îmkanatên hewce jî bo wan nehatine amadekirin, lewra gellek caran em şahidê rû dana bûyerên weha dilêş dibin.

Çend roj berî niha bû ku li xwendegeheke derdora bajarê Xoyê bi sedema dûman û gaza ku li encama ne sitandardbûna îmkanatên germkirinê pêk hatibû çend dersxwan bo heyamê çend rojan li nexweşxaneyê de hatin razandin.

Piştî bûyera li Şînawê xwendegeheke gundê Melhema Selmasê jî agir girt, lê zarok bi xweşî ve ji vê bûyerê bi silametî rizgar bûn. Du salab berî niha bû ku li bûyera herifîna xwendegeha gundê Sofyanê li herêma Somayê de mixabin dîsan çend zarok bûne qurbanî.

Bê guman aliyê berpirsyar li hemberî bûyerên weha û bi tyabet bûyera li xwendegeha Şînawê (ku ji mêjve ye hatiye çêkirin û bona mifahwergirtinê nabe) berî her aliyekê deshelatdraên rejîma Îranê ne, ku ji bilî deshilatê bîr ji tu tiştî nakin.

Li gorî zanyariyên wan di dema bûyerê de ew qasê ku karîn hewil dan ku pêşiya xelkê bo nêzîkbûna bê cihê bûyerê û hilgirtina fîlm û wêneyan ji aliyê wan ve bigrin û heta gellek kes jî piştî bûyerê bi sedema vê ku ji riya sms'an ve xelk ji vê bûyerê agehdar kiribûn destbiser kirin.

Di demekê de ku xelkê welatê me ew qas di destê bê îmkanatiyan de dinalînin, û êş û azarê dikşînin, lê rejîma deshilatdar bi milyardan serwet û samana xelkê welat li Lubnan, Felestîn, kûba, vênzoêla û Sûriyê de xerc dike, û grûpên terorîst teyar dike.

Lewra hindî ku ew rejîma dijî gelî li ser kar be, hêviya bi ewlehî, û jiyanek aram û bi dûr ji êş û azar, îmakana wê tuneye., û xelkê me mixabin wê her şahidê bûyerên weha tal û cergbir bin.

## Kaniya helbestan



N: Erich Fried

W: Tengezarê Marînî

**Jîndar**

Ez

Penaberek bûm

di

welatekî din de

Tu

nexweş bûyî

û kesî tu

wernedigirtî

Ew

bextewar bû

û

birîna wê

sivik bû

Destdirêjî

li wê hatibû kirin

bêyî ko nîşana encameke

xerab

lê xuyabe

ew

wê demê

ji kokê ve

ne li ser

hewata dinyayê bû

û

pêdivî ye

em

hun

û

ew

careke din jî

bimirin

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com




# Ebdulrehman Qasimlo, şeva Yelda ji bo Kurdan kire şeveke bi çirûsk

## Şeva Yelda, şeva ji dayîkbûna Dr. Qasimlo ji her kurdekî pîroz be.

Her çend ku şeva Yelda ji cem gelên din ên Îran û herêmên derdora Îranê bi sedemên cuda û bi awayên curbicur tê pîroz kirin, lê li nav gelê Kurd li rojhilatê Kurdistanê de xelk bi sedema vê ku di vê şevê de Dr. Qasimlo ji dayîk bûye giringiyek taybet didne vê şevê û bi awayên curbicur vê şevê pîroz dikin.

Jiber ku li salên pêşîn de li vê derheqê de, li duheftînameya Agirî de bi dirêjî bas ji vê mijarê hatiye kirin, me nexwast ku dîsan herne nav kûrahiya vê mijarê de, belkû me xwast bona pîroz kirina şeva Yeldam, wek duheftînameya Agirî hinek wêneyên wî li Agirî de bilav bikin.

Bi vê hêviyê ku em bikarin li salên pêşiya xwe de şeva Yelda bi vî awayî ku hejiyê kar û xebata rêberê me be pîroz bikin.



Gundê Qasimlo, herêma Urmiye, Rojhilatê kurdistanê, ew cihê ku Dr.Qasimlo têde hate dinê





